Bidestveanîna Mafên Netewî Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 151
21'ê Çileya Paşîn a 2011
Buha: 150 Tûmen

# Agirî

## Berdewamiya cinayetên rejîmê! 10 kesên din jî hatin darvekirin

Rejîma komara Îslamî a Îranê cencera Îdama xwe dîsan xiste kar û li sibêdeya roja Çarşemî, 19'ê Çileya Paşîn a 2011'an, di girtîgeha Recayîşehr a Îranê de, 10 kesên din jî birin ber darê îdamê.
Di midehê mehekê de pêtirî 50 kes di bajarên cur bi cur yên Îranê de hatine îdamkirin.
Ew kiryarên cinayetkarane ên rejîmê berî her tiştî tirs û wehşet e ji teqîn û serhildana civaka Îranê bi taybetî li hember terhê dijî mirovî vê armancdarkirina varanevan.

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîn www.kurdistanmedia.com/kurdi



## Husên Xizrî hat îdamkirin

**16 Milyon Tûmen û paketek şîrînî, mercê dana termê Husên Xizrî**

**Hêzên rejîmê Pêşî ji birêveçûna merasîma serxweşiya Husên Xizrî girtin** Rûpel 5

## Piştî ultîmatoma Kabulê, rejîmê bilez paşekêşî kir!

Xelkê Efxanistanê li dijî Komara Îslamî rabûn



# Felek ji dîktatoran vedigere

## Îradeya xelkê Tûnisê,Dîktator Binelî neçar bi reviyanê kir



Piştî 23 salan zulm û hovêtî, herweha talanbirina sermayeya welat û malê xelkê, koşka desthilatdariya dîktator Bin Elî di Tûnisê de hiloşiya û ji welat hat derxistin. Derhal rêberên partiyên opizisiyonê û hin ji kewne berpirsan hewlên xwe bo pêkanîna hikûmetek demî destpêkirin.

Di doma xwenîşandanên nerazîbûnê yên xelkê Tûnisê, Zeynulabidîn Binelî, serokkamarê wî welatî, roja Înê, 14'ê Çileya Paşîn, dest ji posta xwe berda û tevî malbata xwe ber bi Erebistana Siûdî reviyan. Xelkê Tûnisê ji rewşa xirab a abûrî, bêkarî, nebûna azadiyên siyasî û ragihandin û gelek pirsgirên din nerazî bûn.

Pêka yasaya bingehîn a Tûnisê, serokkomarê demî divê di heyamê 60 rojan de rewş û derfeta birêveçûna hilbijartinên Serokkomariyê pêkbîne.

Mihemed Elqinûşî, Serokwezîrê dewleta demî, roja Duşemî, 17'ê Çileya Paşîn, lîsteya pêşniyarî a wezîrên xwe bo pêkanîna dewleta demî ragihand. Rewşa Tûnisê piştî xwenîşandanên han û revîna Serokkomar heya astekê aram bûye û şoreşa xelkê Tûnisê bi serkevtî tê zanîn.



### Sûdan; çareserî û asteng

Ebdula Hicab

Encama rapirsîna ku ev çend rojin li Başûrê Sûdanê birêve diçe hê bi yekcarî ne zelal e, lê tê çaverêkirin ku xelkê herêma Başûr riya xwe ... Rûpel. 3



### Îdam, cehdek bo tepeserkirina...

Dara Natiq

Girtin, kuştin, îdam û tirsandina xelkê azadîxwaz û xwedîhizr ên welatê me, yek ji bingehên sereke yên siyaset û stratîjiya rejîma mirovkuj û sedsala navîn ... Rûpel. 5



### Tûnis û serhildana ji bo azadiyê

Selîm Zencîrî

Piştî wê ku welatê Tûnisê li sala 1956'ê de serxwebûna xwe ji Firansayê stand, bi hewl û bizava ... Rûpel. 7



Hunermend/ Narîn Feqê:

## Bila herkes bingeha xwe nas bike û bizane armanca hunera wî çiye

Ez xelkê Başûrê Rojava. bajarê Dêrika Hemko, nizîk bajarê Qamîşlo ji dayîk bûme. Ez ji malbatekî hunerî me. Bavê min hunermend e û bi navê hunermend Cûdî tê naskirin. Bapîrê min Hecî Ahmedê Feqê Hesen dengê wî jî gelek xweş bû û stran digotin. Hertim filkulora strana Kurdî ya resen di mala me de hatiye gotin.



### Binpêkirina mafên jinan

Sefye Xalidî

Di despêka peydabûna mirovahiyê li ser rûkê cîhanê, xebata jinan ji bo ... Rûpel. 9

# Daxuyaniya hevpar a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê û Partiya Kumonîst a Firansayê

Piştî hevdîtina du heyetên Partiya Demokrat û Partiya kumonîst a Firansayê, bi liberçavgirtina wan mijarên ku di wê hevdîtinê de ketibûn ber bas û hebûna ra û nêrînên hevpar li hember wan mijaran, her du aliyan biryar dan ku daxuyaniyeke hevpar biweşînin.

Deqa daxuyaniyê bi vî awayî ye:

**Parîs 6'ê Çileya Paşîn a 2011'an**

**Daxuyaniya hevpar a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê û Pariya Kumonîst a Firansayê**

Şandek Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bi serperestiya birêz Hesen Şerefî, Cihgirê Sekreterê giştî û şandek ji aliyê Partiya Kumonîst a Firansayê ve bi serperestiya birêz Jak Fat, Berpirsê Peywendiyên Navnetewî, bi mebesta hevdîtinek dostane, bas û dan û sitandin liser rewşa deverê, bi taybetî di Îranê de, roja 6'ê Çileya Paşîn di Deftera Navendî a Partiya Kumonîst de civiyan. Her du alî liser pirraniya pirsan nêrînên hevpar hebûn. Di wê hevdîtinê de Partiya Demokrat bi liberçavgirtina vê yekê ku gelên nefars ên Îranî ku pirraniya xulyaqeta welat pêk tînin, girîngiya damezirandina sîstemek federalî di Îranê de bibîr anî.

Her du alî liser pêwîstbûna jiholêrakirina çeka navikî di deverê de, pêkanîna aştiyek adilane di devera Rojhilata Navîn a nizîk de û bi fermînasîna mafên rewa ên gelê Kurd di welatên Îran, Turkiye û Sûriyê de, pêdagirî kirin.

Heyetên her du aliyan bibîr anîn ku rejîma Îranê ne tenê dirêjî bi binpêkirina mafê mirov dide, belkî rewşa han heya tê xirabtir dibe ku: Lisêdaredanên li ber çavên giştî, îdama ciwanên nûgiha, girtiyên siyasî û çalakên gelên jêr sitemê, tepeseriya xwendevanan, rojnamevanan, endamên sendîkayan û parêzerên mafê mirov, cudahî bi dijî gelên Kurd, Turkmen, Azerî, Ereb û kêmaniyên mezebî û binpêkirina berîn a mafên jinan, ji wan in.

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê û Partiya Kumonîst a Firansayê, liberçavnegirtina mafê mirov di Îranê de bi taybetî îşkence, destbiserkirin, îdam, destdirêjî û kuştina girtiyan di dema destbiserkirinê de bi tundî mehkûm dikin û li hember wiha rewşekê de bi pêwîst dizanin ku Firansa û Herweha Yekitiya Ewropayê bi eşkere û zelalî piştewanî ji demokratên Îranê û xebata di pêvajoya cihgîrkirina demokrasiyê di wî welatî de bikin.

Her du alî daxwaz ji berpirsên Firansayê û herweha Yekitiya Ewropayê dikin ku ji bo dawîanîn bi vê tepeseriya hovane, rê û cihên pêwîst li pêş bigrin.

Birêz xusro Ebdollayî li Partiya Demokrat û herweha birêz Patrîk Margate jî li Partiya Kumonîst di wê hevdîtinê de beşdar bûn.

## Sergotar

### Dadgeha terora Herîrî û ...

**Arîn**

Pêvajoya dadgeha navnetewî a terora Refîq Herîrî, Serokwezîrê berê yê Lubnanê ku li 14'ê Çileya Paşîn a 2005'an li kiryarek terorîstî de hat terorkirin, berdewam e û êdî digihîje qonaxên hesas û dawîn yên karê xwe. Pêka zaniyariyên eşkerebûyî li vê derheqê de, heya niha dewsa Hizbulah û desthilatdarên Îranê bi taybet Xamineyî têde dixuye. jiberku, Xamineyî fermana terora Herîrî derkiriye. Fermana wî ji hêla Qasim Sulêmanî, fermanderê Sipaha Quds a Pasdaran ku berpirsatiya operasiyonên derveyî sînor jî li stû de bûye, bi Imad Muxniye, fermanderê leşkirî ê berêye Hizbulahê (ew jî li sala 2008'ê li Sûriyê de hat kuştin) hatiye ragihandin. Ew teror bi hevahengiya tewaw a Sipaha Pastaran û Hizbulahê hatiye encamdayîn; tê zanîn Serkomarê Sûriyê, Beşar Esed û serokê dezgeha sîxorî a wî welatî jî rolek esasî di sergirtina vê terorê de lîstibûn.

Her yek ji wan aliyan tawanbarkirî, berî ku encamên destpêkîn yên dadgehê bihên ragihandin, ketin liv û bizavan, daku pêşî li rewend û pêvajoya şopandina vê dosyayê bigrin. Derhal dadgeh bi alavek siyasî û bi pîlana Amerîka û Îsraîl li dijî xwe dan zanîn û ketin gef û guran. Me dît ku Hizbulahê gefên xwe bicî anîn û li dijkiryarekê de 11 wezîr ji girûp û hevalbendiya xwe ji hikûmetê vekişandin û hikûmeta Seid Herîrî hiloşandin û dîsan aloziya siyasî vegerandin Lubnanê.

Hizbulahê bi vê kiryara xwe du armanc şopandin. Yekem eve ku pêşiya birêveçûna pirosesa dadgehê bigre. Duyem eve ku bala raya giştî a Lubnan û cîhanê li ser pêvajoya dadgehê berxwar û bo aliyê kirîza siyasî li Lubnanê de bikişîne. Lê aloziyên siyasî nebûn asteng li ser pêvajoya karê dadgehê û karê xwe berdewam kir; eva jî li cihê xwe de mistek qahîm bû li devê Hizbulah û kuxayê wê anku Komara Îslamî re.

Niha dadgeha navnetewî a şopandina dosyaya terora Herîrî, rapora karê xwe radestî dadistanê giştî kiriye, lê renge carê naveroka vê nehê weşandin, ji ber ku tesîra wê li ser rewşa aloz a siyasî ya Lubnanê zaf e. Lê eva ku girînge, egera hatina navê berpirsên rejîmê û Sipaha Pasdaran e tevî Hizbulaha Lubnanê bo cara duyemîn weke tawanbarên sereke li dosyayên terorê de û şermezariyek din a navnetewî ye li ser eniya berpirsiyarên rûreş yên Komara Îslamî. (Dadgeha Mîkonosê jî li dosya terora Dr. Sadiq Şerefkendî, Sekreterê berê yê PDK Îranê, berpirsiyarên rejîmê bi tawanbarên sereke û hukmê girtina çend ji wan jî derkir). Lewma vir de girîng e civaka cîhanî hevgav û yekgirtî serbarê mehkûm û şermezarkirinê, tehrîman bixin ser berpirsan û nehêlin çi din bi rûye cîhanê bikenin. jiber ku asta cinayetên Komara Îslamî sînorên cîhanî jî bezandine û bêdengî û girîngînedan bi vê yekê jî, dikare karesatên mezintir û encamên metirsîdartir li pey xwe re bîne.

# Daxuyaniya hevpar a 9 partiyên Opozîsyonê:

## Em îdama girtiyên siyasî mehkûm dikin!

**Bila em bona rizgarkirina canê girtiyên mehkûmê îdamê û azadiya girtiyên siyasî, ji tu hewlekê xemsariyê nekin.**

Carek din cencera îdamê a Komara Îslamî di girtîgehan de ketiye kar. Roja Şemî 1'ê Çileya Paşîn, 4 kes li Belûçistanê û 8 kes li Qumê ketin ber darê îdamê. 16 kesên din jî çavnihêriya hukmê îdama xwe dikin. Roja Duşemî, 3ê Çileya Paşîn a 2011'ê jî ''Quweya Qezaiye''ragihand ku kesek li Zahidanê bi tometa şer ligel xwedê "miharibe" û 7 kes li Kurdistanê di girtîgeha Navendî a Kirmaşanê de bi tometa qaçaxa madeyên hişber hatin îdamkirin. Di heyamê çend rojên derbasbûyî de Komara Îslamî di kiryarek tolhildananê de, 11 kesên girtî li Belûçistanê, piştî bombdanîna Cundillahê û kuştina çend kesan li Çabiharê de, bi armanca tolhildanê birin ber darê îdamê. Sibêzûya roja Şemî 28'ê Çileya Pêşîn li Tehranê, 2 kes bi navên Elî Sarimî û Elîekber Siyadet hatin darvekirin. Sûçê Elî Sarimî, beşdarî di rê û resma bibîranîna cangoriyên sala 1367'a rojî di Xaweranê de bû û 2 salan berî niha hatibû destbiserkirin û Elîekber Syadet jî bi guneha sîxurî kirin bo Îsraîlê, birin ber darê îdamê. Di daxuyaniya dozgeriya Tehranê de, di navbera sûçên Elî Sarimî, endambûn di saziya Micahidîn Xelqi a Îranê hatiye zanîn. Li bajarê Sinê her çend hikmê Hebîbulla Letîfî hatiye ragirtin, lê nehatiye rakirin, metirsiya îdama wî micid e. Hejmarek din di girtîgehên cur bi cur ên welat de li Kurdistanê heya Xozistanê û li Tehranê heya Belûçistanê, bi hukmên mirinê di girtîgehan de berbas dikin. Komara Îslamî bi awayekî eşkere bi îdama kirina dijberên xwe û girtiyên siyasî û hrwisan tawanbarên mehkum bi sûçên cur bi cur, hewil dide ku tevî pêkanîna tirs û wehşetê di civakê de, raya giştî bixapîne û hêzên opozîsyonê jî bixe rewşekê ku nekarin bi dijî derkirin û birêvebirina hukmên îdama girtiyên siyasî dijkiryaran ji xwe nîşan bidin.

Komara Îslamî bilintirîn amara îdamê bi berçavgirtina rêjeya heşîmeta welat bi berhevdan tevî welatên cîhanê de heye. Di 30 salên derbasbûyî ên desthilata Komara Îslamî de, bi hezaran girtiyên siyasî bi tometa azadiya hizrînê ketine ber darê îdamê. Di vî hukmî de mafên sereke ên tawanbaran nahê berçavgirtin. Girtî ji mafê hebûna parêzeran bêpar in. Di dadgehan de heta yasayên Komara Îlamî jî berçav nahên girtin û ew dadgeh bi avayên veşartî û bi nehênî dihên birêveçûn. Girtiyên siyasî dikevin ber azar û ezyet, destdirêjî, îşkence û îhanetên din. parêzer bi sûçên wahî re berbirû dibin û hereşe ji wan tê kirin û hevrîşî girtin û hepsiyan dibin. Komra Îslamî pêtirîn hejmara rojnamevanên girtî bi xwe ve girtî ye û xebata azad a ragihandin û nivîskaran bi tawanek mezin dihesibîne.

Em saziyên wajokerên vê daxuyaniyê, bidijî îdamê ne û derkirina her hukmekê îdamê bi cinayet û binpêkirina eşkere û tundûtûjî a mafê mirov dizanin. Em xwaziyarê ragirtina hukmên îdamê û kuştinê di girtîgehan de, berçavgirtina mafê sereke ên girtiyan û azadiya bêşert û merc a girtiyên siyasî û xudan bîr û baweriyê ne. Em îdama 11 girtiyên Belûç û 2 girtiyên din, Elî Sarimî û Elîekber Siyadet, bi tundî mehkûm dikin û gaziya hemû navend û civaka parêzerê mafê mirov û herweha hêz û saziyên pêşketî ji bo sekinandina cencera kuştinê a Komara Îslamî bi hevkarî tevî xebatkarên azadîxwaz û mafê mirov di Îranê de dikin. Em ji hemû hêz û çalakên xwe li her cihekê hene dixwazin ku, di rêkxistina berevanîkirin tevî tepeserî û îdamê, çalakane beşdariyê bikin û tevî sazî û pêkhateyên din û çalakên parêzerên mafê mirov hevkariyê bikin. Li hember pêla tundûtûj a ku rejîmê bi rê xistiye, nabe em bêdeng bin. Cencera tepeserkar û îdama vê nîzamê, tenê em dikarin bi xebata bihevre a gişt pêkhateyên siyasî û çalakên warê mafê mirov bidin sekinandin. Ji bo parastina canê mehkûmên bi îdamê û azadiya girtiyên siyasî, em ji tu hewlekê kêmasiyê nakin.

**Yekitiya Komarîxwaz ên Îranê**
**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Partiya Demokrat a Xelkê Îranê**
**Partiya Komeleya Kurdistana Îranê**
**Cebheya Millî a Îranê-Ewropa**
**Saziya Yekitiya Fîdayî ên Xelqê Îranê**
**Saziya Fîdayî ên Xelqê Îranê"zoratî"**
**Komîteya Hevahengî a Şoraya Muweqet a Sosyalîst ên Çep ên Îranê**
**Şoraya Hevahengî a Cunbiş a azadîxwazên Demokrat û Laîk a Îranê**

**Çarşemî 5'ê Çileya Paşîn a 2011**

# Sûdan; çareserî û asteng



Ebdulla Hicab

Encama rapirsîna ku ev çend rojin li Başûrê Sûdanê birêve diçe hê bi yekcarî ne zelal e, lê tê çaverêkirin ku xelkê herêma Başûr riya xwe ji ya Bakûrê welat cuda bike. Hêj zûye ku ji niha ve şahiya wê cudabûnê bi wê manayê bê şirove kirin ku ji dayîkbûna welatek nû li rojhilata Afrîqa, dê pirsgirêkên herêmê çareser bike. Sûdan li gel pirsgirêka Başûr, bi arîşeyên herêma Darfûr re jî rûbirû ye ku pir ji mijara sereke ya pirsgirêka Başûr ne cuda ye. Kom û civakên qewmî, zimanî, olî û eşîrî ji ber siyaseta înkarkirin û duçavkiya dewlet û alîgirên wê, hin ji dewlet û deselatdaran bêzar in ku zehmet e ji serdestiya Sûdanê re serî biçevînin.

Lê raya gel li navçeya Başûrê Sûdan û çarenivîsa ku ji encama wê rapirsînê re derdikeve, bûyerek bi têra xwe bêhempa ye. Ji ber ku eger hemû alî ji raya gel re rêzê bigrin û serxwebûna Başûrê Sûdanê weke welatek nû yê serbixwe bipejirînin, ev dibe cara yekê ku yek ji welatên cîhana sêyê bi wî awayî ji raya gel re, her nebe li beşek ji herêmên di bin deselatdariya xwe de, serî ditevîne. Ew yek nîşaneyek erênî ji bo pêvajoyek nû ye ku dikare ji çareseriya pirsên neteweyî li deverên din re jî bibe mînak.

Sûdan, welatê herî pan û berîne Afrîqa li perava derya Sor bi giştî 44 Miliyon rûniştvan hene ku ji wan 8 heya 13 Miliyonan li Başûr û nêzîk 6 Miliyon kesan li herêma Darfûrê dijîn. Di warê olî ve, 70% xelkê welat Bisilmanên Sunnî, 16% Mesîhî û yên din ji ol û diyanetên cuda ên Afrîqayî ne. Li kêleka zimanê Erebî ku zimanê pirraniya xelkê welat e, zimanên Nubî, Bedawî, Nîloyî û Ingilîsî tên axaftin. Herêma Başûr zimanê Ingilîsî weke zimanê fermiye deselatê bikar tîne. Pêkhateya qewmiye welat hê rengîntir e. Ew pirrengiya bûye bingeh ji bo daxwaz, û bi daxwazê ve jî girêdayî pirsên qewmî û neteweyî li başûr û rojava ya welat. Piraniya rûniştvanên heremên Başûra Sûdan û Darfûrê ji aliyê qewmî ve Ereb ninin û ji aliyê olî ve bisilman ninin. Başûrê Sûdanê bi piranî mesîhî ne, herêma Darfûr ji xelkê xwecî, alîgirên olên herêmî û reşpêstan pêk tê.

Welatê Sûdanê, heya sala 1956'ê, wê dema ku xweser bûyî, di bin deselatdariya Misr û Birîtaniya Mezin de bû. Dîroka bi hezaran salî a deselatdariyê li heremê, ji dîroka Rojhilata Navîn pir necuda ye. Herêm xwediyê dîrokek dewlemend ya deselatdariyê ye ku bi paşatiya Nubî vet ê girêdan ku 2000 sal berî Zayînê bi ser peravên çemê Nîl li bakûrê Sûdana îro û başûrê Misr a îro deselatdarî dikir. Piştre dîroka welat tevlî ya Misrê û deselatdarên herêma Nîl bû, kete bin destê Erebên Bisilman, kete bin destên Împeratoriya Osmanî û li sala 1821'an ve bi Misrê re bû yek û kete bin destê Xedîvê Misrê ku bi xwe bi Împeratoriya Osmanî ve girêdayî bû.

Ji sala 1956'an heya niha sê şerên mezin li welat qewimîne. Hegerên serekeye her sê şeran vedigere ser hewlên dewleta navendî ji bo bi cîhkirina pîvan, pilan, projeyên siyasî, civakî û kultûra xwe bi ser herêmên ku di warê qewmî û olî de ji kultûr û baweriya herêmên navendî cuda ne. Her ji destpêka serxwebûna welat re netifaqî û şerê kom û grûpên cuda bi hev re kete rojevê û bi kiryar dewleta navendiye Xartûm qet nekarî bersiva daxwaziyên xelkê welat bide an bi ser hemû hereman de desthilatdariyê bike. Yekem şerê navxweyî yê Sûdanê di salên navbera 1955'an di pêvajoya serxwebûna welat de heya 1972'an bû û bi şerê Anyanya tê naskirin ku di navbera bakûr û başûrê welat de li ser pirsa xwebirêveberiya başûrê welat qewimî. Di wan 17 salên şer de bi kinî nîv miliyon kes hatin kuştin.

Peymana aştiyê ku sala 1972'an li Adis Ababa hate îmzakirin, derî ji bo avakirina herêmek xweser li başûr vekir. Di encama lihevhatina aştiyê de Hukûmeta herêma Başûrê Sûdanê pêk hat, lê serdestiya bakûr û hewldan ji bo bicihkirina yasayên şerîetê li herêma ku piraniya xelkê wê mesîhî bûn, bi kiryar jiyana bi hev re ya Bakûr û Başûr nemumkin dikir.

Piştî aştiyek kurtdem di navbera her du aliyên şer de, dubare her du aliyan berê xwe dane çekan û riya şer hilbijartin. Şerê duyemîne navxweye Sûdanê li salên di navbera 1983'an heya 2005'an de bû ku bi xwe re 2 Miliyon kuştî, 4 Miliyon koçberên hundirîn û bê reje wêranî û kawilkarî anî. Lê di dawiyê de, sala 2005'an aliyên şerker peymanek aştiyê wajo kirin ku rê ji bo rapirsiya 9'ê Januariya îsal û di encamê de jî renge serxwebûna Başûrê Sûdanê vekir.

Şer li Sûdanê bi tenê di navbera başûr û bakûr de nebû. Herêma Darfûr ku dikeve aliyê rojava ya Sûdanê, qadik din ya şerê navxweye welat bû. Herêm bi sedan salan xwediyê deselata xwemalî û mîrnişînên herêmî bû û sala 1916'an ji aliyê Birîtaniya Mezin ve bi welatê Misrê ve hate girêdan. Di wan salên dawî de, piştî ku xelkê xwecî nerazîbûna xwe li hember siyaseta duçavkiya dewletê nîşan dan, bi navtêdana dewletê ku piştgiriya komên Ereb yên tundajo dike û tevgera tundajo ya Cencewîd ava kiriye herêm ketiye nava şerek bi xwîn. Xelkê xwecî yê ku bi esla xwe ne Ereb, bûn goriyên herî mezin. Ji sala 2003'an ve ji ber qeyrana xelaiyê rewşa heremê hê aloztir bûye.




Ji şêniya 6 Miliyon kesiye Darfûr bi kêmî 5 Miliyon kes ketine bin bandora şer, xelayî û kêşeyên etnîkî û tundajoye olî. hejmara qurbaniyan, êdî çi kuştiyên şer bin an miriyê xelaiyê, her nayê hesab kirin. Sala 2010'an di navbera Eniya Rizgariya Sûdan ku li Darfûr hevbendiya siyasiye herî bi bandore li dewletê de peymana aştiyê hate îmzakirin. Niha tê hêvîkirin ku rewşa başûr û çareseriya ku li wê heremê pêş bikeve, rê ji bo çareseriyekê ji herema Darfûr re jî veke.

Lê bi wê yekê re jî pirsgirêk çareser nabin. Sûdan bi pirsa bêkêriya birêveberiyê, parvekirina ne wekheve dahat û dewlemendiya welat, kîna xelkê li hember karbidestan, û ji hemûyan giringtir pirsgirêkên tundajoiya olî, nasyonalîzma Erebî û kêşeya Darfûr re rûbirû ye. Yasayên şerîetê weke ku îro ji aliyê deselatê ve bûna bingeha birêveberî û dad tên bikaranîn, bi pîvanên mafên mirovan re hev nagrin.

Ji aliyê xwe ve, Başûrê Sûdanê jî dema ji sermestiya serxwebûnê hate serhemdê xwe ve, wê êş û azarên xwe bihese. Pirsa sereke ewe ku gelo kom û civakên cuda wê serdestiya pêşengên ingilîsîaxêve mesîhî bipejirînin, an wê yekê weke pirek ji bo pêşerojek cuda bi kar bînin. Civaka Başûrê Sûdanê ji komên qewmiye weke Bari, Dinka, Nuer, Lotuko, Kuku, Zande, Mundari, Kakwa, Pojulu, Şilluk, Moru, Açoli, Madi, Lulubo, Lokoya, Toposa, Lango, Didinga, Murle, Anuak, Makaraka, Mundu, Jur, Kaliko û gelek komên biçûke din pêk tê. Ji wê bider, li ser sînûrên bi Sûdanê re pirsgirêkên erdê hene. Ka kîjan herêm wê bikeve ser kîjan dewletê? Serbarê hemû wan pirsgirêkan mijara abûrî û çavkaniyên neftê hene. Gelo petrola welat wê tenê milkê Başûr be an wê para Bakûr jî tê da hebe. Di wê rewşê de wê dahat çawan bê parvekirin, kî wê li ser pêşeroj û siyaseta niftê biryarê bide û gelek pirsên din.

Lê cudabûna Başûrê Sûdanê destpêkek nû ye ku dikare ji çareseriya pirsa herêma Darfûr re jî bibe alîkar. Karbidestên Sûdanê, piştî şerên bi xwîn û qurbaniyên bê hejmar, di dawiyê de çavên xwe vekirin û li hember zexta navneteweyî û daxwaza beşek ji xelkê welat serî tewandin. Niha cîhan li bendê ye heya bizane ka gelo dewleta Sûdanê wê ji herêma Darfûr re jî heman pêvajoyê bipejirîne an na. Sal û demên li pêşiya me wê bersiva wê pirsê bidin.

# Demokrasî

N : Şehriyar Zerşinas

W : Siyamend Beşa 2

Di beşa yekem de , tevî anîne berbasa bingehên sereke yên Demokrasî yan xelkserweriyê , me îşare bi wateya ''hurmeta Mirov'' wek berjenga bihaya herî bingehîn a sîstemekî Demokratîk kir. Niha bi awayekî rohntir emê tekezê ser vê mijarê bikin.

Demokrasî di diyarîkirina nizama bihagiraniya xwe de, li gorî vê dîmenê, dibe mirov azad û serdest be. Bi wateyek din bikaribe kesayetiya xwe bi biryarên serbixwe bikemilîne û ber bi bi xurtbûnê ve bibe. Li gorî dîmenekî han ji miro, her kesek xwediyê hurmeta mirovî ye. Niha bizanin ev hurmeta mirovî bi çi wateyekê ye?

Ev tiştê ku mırov ji mirov û herwusa ji Heywanan cuda dike, her ew hêza hiş û mejiyê vî/ê û nemaze haydarbûna wan li ser mirovatiya xwe ye. Di halekê de ku heywan girêdayî bi xwezayê ne û bi awayekî xerîzî dixebite, mirov bi piştqahîmkirina bi hizra xwe dikaribe xwe ji xwezayê cuda bike û li ser de zal be. Di berfirehiya hiş û hundira mirov deye ku kesayetî û riha vî/ê şekl û bîçmê digire û ne tenê di gel xweza û cîhana madî, belkî herwusa digel bîr û raman û cîhana menewî de jî pêywendiyan pêktîne.

Eva xasmaniyek bêmînak û nemaze ye ku tenê di mirovan de dibe sedema pêkhatina kesatiyê û dibe hegera wê yekê ku bikaribe kiryarên xwe bi awayekî armancdar, bipilan û baş pêşve bibe. Bi wateyeke din, hurmeta mirov bi wateya şiyana hudirî a vî bona zanabûna gorekî xwe û wergirtina berpirsatiyê di diyarîkirina rêya jiyana xwe deye.

Lewra eger qirar be mirov bi wateya mirov bijît, diviya hurmet û pêgeha şexsî a wî/ê tûşî derbeyan nebe û ji destdirêjiyê bê parastin. Ew yeka bi vê wateyê tê ku deselatdaran ew îzne tu nebin di rastaya armancên siyasî, aborî û îdolojîk wek alavekê mirovan bikar bibin. Jiber ku hurmetgirtina ji bo mirov, di nizamekî Demokratîk de, bi awayekî diyar û rohn bi manaya hebûna wan maf û azadiyan ji bo mirov tê heya ew dikaribe di rewş û zirûfa diyar a jiyanê û hebûna îmkanatên cur bi cur, biryarekî azad û dilxwaz, ji bo serederî û kiryara xwe bigre. Ji ber ku mirov tenê heya demekê berpirsane dilive ku li gorî îradeya azad a xwe bilive.

Azadî li vir de tiştekî rût û sehpêkirî ne, belkî bi awayekî diyar bi wateya azadî di diyarîkirina şêwaza jiyanê, azadiya ol û cîhanbînî û kar û barê wijdanî, azadiya hilbijartina kar û serederiya azadane gorî malikiyet û xwedîtiya şexsî û wek wê ye. Zêdebarê wê, azadî li vir bi wateya çarçoveya şexsî û tenahiyê di hember kiryarên xweser ên binyatên dewletî jî xwe dide holê. Tenê Hikûmetek ku bi baldan bi hurmeta mirovî, bawerî bi van azadiyane heye, mafê azadiya mirovan jî berçav digire.

Ji dîmenekî han ji mirovan ku daxwaza azadiyên kesokî û mafê geşekirina kesatiya mirov û wekheviya tev mirovan di hember yasayê çavkaniyê digire. Lê dibe zêde bikin ku azadiyên kesokî îzna wê yekê tu nînin mîna yasayên negor xwe bidin holê. Azadî xwediyê ast û tixûban e. Tixûbên azadiyê di vir de ne ku azadiya kesên din binpê dike. Rast bi wê sedemê, bi fermî naskirina hurmeta mirov, bi awayekî hevçax bi manaya erkekê di berçavgirtina hurmet û azadiya mirovên



dinê tê hisêb. Lewra, azadiya wekhev ji bo tev welatiyên civatgehekê, ji xwastekên nemumkin ên demokrasiyê ne û nizama demokratîk bi vê pîvanê tê berhevkêşan ku heya çiqas kariye azadiyên kesî ji bo hemûyan berçav bigirin.

Bi baldan bi dîmenekî han ji mirov e ku kakil û cewhera demokrasiyê tê famkirin. Bi vê hitbarê, dikaribin nizamek demokratîk bihesibîne ku bi fermî naskirina hurmeta mirov wek berjenga bihaya herî giring, vê armancê dişopîne ku ji bo tev hevwelatiyên xwe, bi awayekî wekhev, azadî û geşekirina kasatî bona pêşvebirina berpirsaneya jiyanê araste û pêşşertên civakî ji bo wan pêk bîne. Lewra , demokrasî komek ji destûr û fermanên rûyekî nine, belkî naveroka xwe li vê rêyê ve diyar dike ku serdemên dîrokî û civakî ên cur bi cur, pileya herî bilind ji azadî, berpirsatiya şexsî û dada civakî misoger bike.

Ceribînên dîrokî nîşan dane ku mutleqkirina hin bingeh û bîr û ramanên demokrasiyê wek hikûmeteke piranî dikaribin armanca demokrasiyê tûşî tirsê biken. Ji ber ku piranî jî tûşî şaşiyan dibe. Her bi vê sedemê, Pêdviye ku hurmeta mirov bi wateya bihaya bingehîn a demokrasiyê heta ji aliyê hikûmetên herî mezinên piranî jî vere berçavgirtin.

**Pir rengî an Piloralîsm**

Me da zanîn ku demokrasî , azadiya kesokî dipejirîne, lê dibe bihê zêdekirin ku di nizamekî demokratîk de, aktorên rastîn, îdî ne kit kitê hevwelatiyan, belkî piranî gurûpên civakî ne ku di çarçoveya civat, sazî û partiyan, bi komkirina hevwelatiyan di xwe de, armanc û meramên civakî yên diyar û berçav dişopînin.

Lewra, em dikaribin van gurûpên civakî wek alavekê bînin hisêb ku hevkariya tev hevwelatiyan dikin heya li riya hevdengiya gurûpî, li ser neşiyanên kesî ên xwe da zal bin û hez û xwastekên xwe nemaze ên hevpar bişopînin. Cur bi curiya saziyên siyasî, civakî, aborî, çandî û herwusa civînên cur bi cur ên olî di civatgehên demokratîk, xurtbûna hez û bawerên cur bi cur ên mirovan di wan civatgehane de ye.

Lewra berevajiya civakekî yekdeng û dijberê azadiyê, civakek ku azadiyê dipejirîne, civakekî pireng yan piloralîstiye. Pirrengî tenê çarçoveya civakî û aborî ji xwe nagire, belkî di civatgehekî modern, dîtin û nêrînên bihayî ên mirovan jî ji xwe digire. Micidbûna azadiya kesî di nizamekî demokratîk, bi wateya bêhitbarbûna fermanan ji serê û yan hukmên sunetiye ku biryarên wijdanî yên tak li ser bingeha zordariya bihagiraniya vî nemimkin dike.

Ji ber ku azadiya tak bi awayekî yasamend, meydanê ji bo bîr û bawer û rayên olî û cîhanbînane xweş dike. Renge ew zêdeya han ji bo zaf kesan nexweş be, ji ber ku pir rengî û cur bi curiyê wateyek xincî bas û nîqaşa berdewamca navbera hez û bawerên cur bi cur ên tak û guroûpên civakî nîne.

Di civaka piloralîstî, her kes yan gurûpek civakî, di berêkaniyeke berdewam da xwe derbaz dike. Lê demokrasî neçar e taba wê nîqaş û berêkaniya navbera hez û selîqeyên cur bi cur de bike, ji ber ku karekî han encama xwezayî a mafê qedera mirov di nizamekê de ye ku naxwaze di gel pawanxwaziyê saziş yan lihevhatin hebe.

Cehda ji bo yekdestkirina tak û bîr û hizrên wan, wateyek xincî idiaya hebûna bergekî negor û yekane bûna rêkxistina pêywendiyên civakî navbera mirovan nîne . Lê bergekî han qet tunebûye û nabe. Her cure cehda di pêvajoya dasepandina îradeya diyar di înkarkirina cur bi curiya civakî di gel azadiya mirovan di bingeh de di dijberyê daye û civakê nexweş û tûşî nexweşiya pawanxwaziyê dike.

Lewra di civatgehek pir rengî de eger çi bas û nîqaşek berdewam di navbera baweriyên bihagiran ên cur bi cur de, dîtinên siyasî ên cur bi cur û hezên aborî ên bi dijî hev li gorê daye, lê nizama demokratîk vê yekê wek berjenga hêza jêhatî berhev dikêşe, ku pêşveçûna civakî misoger û rikûd û rawestanê nemimkin dike. Ew hêze civatgehê keyfxweş û rewşê ji bo pejrandina rêkarên nû vekirî dihêle. Tenê di civatgehek vekirî û nerm de, azadiya mirov û hevçax afirandina hundiriya wî di heyameke dirêj de tê garantîkrin. Lewra civakek ku bersiva erînî bi azadiyê bide, bi neçarî dibe pir rengîtiyê bipejrîne.

Di nizamên demokratîk de, dewlet li serweyî civakê de cih nîne. Cihdana dewletê li serweyî civakê bi wateya spartina vî erkî bi wê ye ku li ser civatgehê ji serê û bi awayekî pawanxwazane deselatê biket. Bi wateyeke rohntir kivş bike ku kîjan bîr û rayên xwedî biha baş û kîjan nebaş in. Karekî han bi awayekî yasaperwerane dewletê alîdar dike. Lê di civatgehek pir rengî de ku endamên wê dikaribin li rêya rêkarên diyarîkirî, di birêvebirina îradeya dewletê de beşdar bin, dewlet tenê dikaribe di rolê alava hevpêywendî û bidesvehatina armancên hevpar de xwe bide eyanê. Lewra di nizamek demokratîk û pir rengî de, eva dewlet nîne ku erkê civatgehê diyar dike.

Me got ku di civakek piloral de, nîqaşa berdewam a navbera bîr û ramanên xwedî biha û dîtinên siyasî ên cur bi cur, hezên bi dijî hev di gorê daye. Lewra em dikaribin bigehin vê encamê ku di civatgehek han de, rêkxistin û garantîkirina yasayan bona çareseriya pirsên civakî û zêrevaniya li ser yasayên han, xwediyê giringiyek xasmanî ye. Berêkaniya gurûpên civakî di gel hev bona diyarîkirina hêl û meşên bo paşerojê, tenê demekê dikaribe bona tenahiya civatgehê bêtirs be ku yasayên berêkaniyeke azad û bi însaf û aştîxwazane hatibe garantîkirin.

Virde ye ku rolê rêkxistinî û garantîkirina dewletê, wek giringiyek bingehîn xwe dide eyanê. Dewletek ku bixwe ji biyavê dîtinên xwedî biha û îdeolojîk ve bêalî ye. Ji bo nizamekî demokratîk bi tevayî kivş e ku ewa civatgeh bixwe ye ku li rêka alava dewletê, li ser yasayên rikeberî û leyîza demokratîk zêrevanî û cih û warê birêveçûna wê garantî dike. Rikeberiyek ku armanca wê, nezm ji bo jiyana civatgehê ye, nezmek ku hertim azadiyê dişopîne û ne ewa ku bixwe armanca vê yekê be.

# Husên Xizrî hat îdamkirin

**16 Milyon Tûmen û paketek şîrînî, mercê dana termê Husên Xizrî**

Hêzên rejîmê Pêşî ji birêveçûna merasîma serxweşiya Husên Xizrî girtin

Husên Xizrî, girtiyê siyasî yê kurd, sibêdeya roja Şemî, 15'ê Çileya Paşîn, di girtîgeha navendî a bajarê Urmiyê de hat îdamkirin. Eve jî li halekê de bû ku midehê 2 heftiyan bû Husên Xizrî di rewşek nerohn û cihek nediyar de bû.

Husên Xizrî di berwar 10'ê Gelawêja 1387'a Rojî de di bajarê Kırmaşanê de ji aliyê hêzên Sipaya Nebî Ekrem a wî bajarî ve hatibû destbiserkirin û heya dawiya meha Rêbendana wê salê ji aliyê Sipaha Pasdaran û Wezareta Îtilaatê ve di bin lêkolînan de bû. Piştî derbaskirina 3 gerên lêkolînan, Husên Xizrî bo girtîgeha Urmiyê hat veguheztin.



Hêjayî gotinê ye ku midehê dadgehîkirina Husên Xizrî ku hukmê îdamê bi ser de hatibû sepandin, tenê 10 deqe bûne. Tometên navbirî teblîx û piropagende dijî nîzamê û hevkarî ligel yek ji partiyên dijberî rejîmê hatibûn ragihandin.

Herweha malbata Husên Xizrî ku di "Kuştargeh" a bajarê Urmiyê de akincî ne, piştî haydarbûn ji îdama kurê xwe, bi armanca wergirtina termê wî seredana girtîgeha Urmiyê kirin, lê hêzên Komara Îslamî daxwaza 16 Milyon Tûmen pere û paketek şîrînî ji malbata navbirî dikin.

Herwiha piştî haydarbûna ji darvekirina Husên Xizrî, xelkê Urmiyê xwastin merasîma serxweşî jêre danên û seredana malbata şehîd Husên kirin, lê bi êrîşa hêzên rejîmê ber bi rû bûn.

# Îdam, cehdek bo tepeserkirina tevgerên azadîxwazî !



Dara Natiq

Girtin, kuştin, îdam û tirsandina xelkê azadîxwaz û xwedîhizr ên welatê me, yek ji bingehên sereke yên siyaset û stratîjiya rejîma mirovkuj û sedsala navîn a Komara Îslamî a Îranê bûye ku vê rejîmê di heyamê zêdetir ji 30 sal desthilatdariya xwe de hertim birêvebiriye. Vê rejîmê bi dirêjahiya temenê desthilata biyoma xwe, bi pêrewkirina siyasetên dijî gelî ên xwe, yasa û hukmên sedsala navîn bi ser xelkê pêşkevtî yê welatê me de sepandiye û mafê jiyan û azadî û hizirînê ji xelkê welatê me bi giştî û netewên bindest bi taybetî zewt kiriye û di pêxema parastina desthilata xwe de, welatê me bi hejarî, nedarî, bêkarî û bêmafiyê re rûbirû kiriye.

Rayedarên vê rejîmê bi afirandina rewş û zirûfekî emniyetî û polîsî û dirêjîdan bi pêvajoya tepeserkirin û tund û tûjiyê biser welatê me de, zêdetir ji 3' dehikan e ku her terze dengekî azadîxwazî di Îranê de bi awayekî hovane fetisandiye û parek berçav ji azadîxwaz û xebatkarên riya maf û azadiyên tex û qatên cur bi cur ên civaka me ji heps û îşkencexanan re şandiye. Bi hezaran kes ji xebatkarên siyasî û têkoşerên riya rizgarî û azadiyê hatine darvekirin. Tenê di du heyvên Pûşper û Gelawêja sala 1367' Rojî de û bi biryara Xumeynî, çend hezar xelkên şoreşvan û azadîxwazên welatê me di zîndanên Komara Îslamî de hatin gullebaran û darvekirin û di gorên bikome wek goristana Xaweran de hatin veşartin. Roj nine ku em guhdarê girtin, darvekirin û destbiserkirina çalakvanên sivîl û xebatkarên siyasî û berevankarên mafê mirov ji bajar û herêmên cur bi cure welat û Kurdistanê nebin.

Bi hegera vê çendê ku Kurdistan hertim çepera xebat û berevaniyê li dijî desthilatên dîktator û yek ji wan rejîma serberedayî û dijî gelî a Komara Îslamî a Îranê bûye û berdewam bizava azadîxwazî a kurd, tekoşînekî newestane di vê herêmê de hebûye, rejîm bi mîlîtarîzekirina Kurdistanê û ji riya navendên ewlehî û tepeserkarên xwe ve, piraniya pêvajoya girtin, kuştin û darvekirin û .... di vê herêmê de birêvebiriye. Rejîmê hertim cehdkiriye ku bi tepeserkirina xelkê Kurdistanê û bi darvekirina çalakvanên siyasî û sivîle Kurdistanê rewş û zirûfekê bi xof û tirsê di vê herêmê de çêbike û bi kiryarên biyom û dijî mirovî a xwe pêşî ji tevgera azadîxwazî yên xelkê Kurdistanê bigre û hevdem bi wî avayî hêz û îradeya bizava seranserî a mafxwazane ya Îranê bi giştî lawaz bike. Girtin û îdamkirina xebatkarên çandî û wêjeyî û çalakên sivîle Kurdistanê û çêkirina dosyeyên nerast ji wan re ji aliyê dezgahên ewlehî ên rejîmê ve bi sûçên sîxorî û têkdana tenahiya welat, di heyamê çend salên derbasbûyî de, pêvajoyekî bi leztir bi xwe re girtiye û pirosesa han bûye cihê nîgeraniya raya giştî.

Ji aliyek din ve di çend mehên derbasbûyî de, pêvajoya îdamkirina xebatkarên siyasî û medenî di seranserê Îranê de, di bin navên curbicur de geşe kiriye. Bi awayekê ku di du hefteyên dawiya sala 2010' an de, pêtir ji 40 kesan û herwusan di 8 rojên destpêka sala 2011'an de 20 kes di zîndanên Komara Îslamî de hatin darvekirin.

Xurtbûna pêlên îdamê di demekê de ye ku du heftî berî destpêkirina sala nû a Zayînî, Şêvra Mafê Mirov a saziya Netewên Hevgirtî di biryarnemeyekê de Komara Îslamî weke binpêkarê mafê mirovan şermezar kir. Pêka rapora navendên mafê mirov di cîhanê de, Îran piştî welatê Çînê di warê îadmkirinê de duhemîn welatê cîhanê tê hesibandin. Herwusan di doma pêlên berfireh a îdam û derkirina hukmên îdamê di çend hefteyên derbasbûyî de, hatiye xuyakirin ku piraniya wan hukman biser zîndaniyên siyasî, netewî û olî de hatiye sepandin. Piraniya hukmên han di dadgehên nîzamî û çend deqeyî û bêy hebûna mafê parêzer û ji nêrînekî siyasî û ewlehî ve hatine cizadan. Pêvajoya bilez a pêlên nû yên îdamê di Îranê de bûye hegera vê çendê ku carek din Fedrasiyona Navdewletî a civaka Mafên Mirov û civaka Berevanî ji Mafê Mirov a Îranê bi derkirin ragihandina han wekê nîgeraniya xwe ji dana wan hukmên neadilane da xuya kirin. Pêka amara navenda nûçegihanî a ser bi dezgehê dad a Îranê, di sala 2010'an de 179 kes di wî welat de hatine darvekirin, ewa di demekê de ye ku saziyên cîhanî ên mafê mirov jêveye ku amara îdamkirinê di Îranê de zaf ji vê hindê zêdetir e jiber ku Komara Îslamî bo xapandina raya giştî tucaran amara rast a îdaman nade xuyakirin û piraniya wan kesan jî bi awayên nehênî darve dike.

Bêguman weke ji tev aliyekê re rohn û diyar e ku pêlên nû yên darvekirin li vir çavkanî digre ku di çend salên borî de û bi taybetî piştî ragihandina encama helbijaretina gera dehem a serokkomariyê di Îranê de, pêlên nû yên meşên nerazîbûnê di Îranê de pêvajoyek bileztir bi xwe ve girt û tevgerên cemawerî û azadîxwazî yên weke saziyên sivîl û pîşeyî, kedkarî, jinan, xwandekaran û ciwanan hêdî hêdî tixûbên daxistiye sîstima tepeserkar û îdeolojîk a Komara Îslamî a Îranê derbas dikin weke bizavekî eşkere û pêşketî û hilgirê peyama azadî û wekheviyê, xwe bi ser rastiyên îroyîne Îranê de disepîne û dibe sekoyek ji bo geşekirin û pêşveçûna hêzên siyasî û alîgirên maf û azadiya xelkê. Lewma rejîm dixwaze bi tepeserkirin û darvekirina ciwanên azadîxwaz yên welatê me, zirofek bi tirs û xof di tewawê Îranê de çê bike, heya ku bi qewlê xwe bi vî awayî pêşî ji tevgera azadîxwazî a seranserî di welat de bigre û hewara mafxwazane a gelên bindest ên Îranê bi awayek zaf tund bifetisîne.





# Rojhilata navîn qada rikeberiya superhêzên abûriya cîhanê



**Ceifer Mubeşirniya**

Rojhilata Navîn yek ji dewlemendtirîn dever li cîhanê di warê çavkaniyên binerd bi taybetî Petrolê de ye û li vê riyê ve jî kirryarek bihêz ya bazara abûrî ye. Lê di heman demê de jî deverek paremayî ye di warê pêşketina zanistî û teknolojî de, herweha di warê afirandina senetî de jî lawaz e. Lewma bûye deverek herî aloz di cîhanê de ku ji pêwîstiyên xurekî, hewcehiyên jiyanê û bi taybetî alavên şer û serbazî û teknolojiya pêşketî ve. lê bixwe afirînerê tu yek ji wan alavan nine, ew jî di demekê de ye ku ew alav weke hewcehiyên jiyanê û hukûmetdariyê liser dewletên Rojhilata Navîn ferz e ku bi her awayekê be bidest bixin.

Di warê kirrîna wan alavan de, jiber hebûna sermiyana zaf a vê deverê bi taybetî niftê, welatên devera han bêminet in, her ew dewlemendî û bêminetî jî bûye sedema xemsarî û pêşneketina civak û hikûmetên vê deverê.

Ji aliyek din ve jî superhêzên abûriya cîhanê girîngiyek taybetî didin devera Rojhelata Navîn weke bihêztirîn bazara kirrîna alav û berhemên wan.

Lê desthilatdarên welatên wan hêzên abûrî jî seba bidestxistina sermiyanek zêde û bûn bi yekimîn hêz di bazara abûrî a cîhanê de, di rikeberiyê de ne.

Amerîka weke yekimîn hêza abûrî ya cîhanê, di Rojhilata Navîn de heya qasek pêgeha abûriya xwe qahîm kiriye, lê ji bo Amerîkayê girîng e ku welatek bihêz di vê deverê de bike hevalbend û di wê riyê ve pêtir xwe ji samana binerdî a Rojhilata Navîn nizîk bike.

Ji aliyek din ve jî bi avabûna Yekîtiya Ewropayê, hêzek din a mezine cîhanê li hember Amerîkayê de ket rikeberiya abûrî di rojhilata navîn de. Her bi vî awayî vê Yekîtiyê jî bona ku bikare di Rojhilata Navîn de bingeha abûrî a xwe bihêz bike, hewcehî bi hevalbendek stratîjîkî yê abûrî hebû ku him di deverê de xwedîhêz be û him jî çavkaniyên hewce bo bazara abûriya xwe peyda bike, lewma Yekîtiya Ewropayê jî ku ji welatên xwedî neteweyên diyar pêkhatiye û nasyonalîzma netewî li wir bihêz e, lewma bihêzbûna nasyonalîzma Erebî ji xwe re giran dibînin û hewil dan pêtir xwe ji welatek neereb û di heman hal de dewlemend bi enerjî û çavkaniyên binerd nêzîk bikin.

Li vê navberê de desthilatdarên Îranê ji bo xwederxistin weke superhêzê Rojhilata Navîn ku ji wan re armancek sereke ye, hemû hewlên xwe bikar anîn daku him vî naznavî dagîr bike û him jî gorî berjewendiyên xwe bibe parêzerê berjewendiyên yek ji wan superhêzan. Lê jiberku pêwendiyên siyasî û dîplomatîk bi Amerîkayê re nebûn, zêde xwe da aliyê Ewropayê û heya qasekê jî têde serket û karî him pêwendiyên bazirganî û siyasî yên xwe bi Ewropayê re bihêz bike û li hember firotina enerjiya xwe de puanan ji wan werbigre.

Lê vê dawiyê bi eşkerebûna hin belgeyan ji aliyê Wîkîlîksê ve, welatên Rojhilata Navîn bi taybetî welatên Erebî bi tu awayekê amade nebûn serkêşiya deverê bidin Îranê. Her wek di wan belgeyan de hatibû ku pirraniya welatên Erebî daxwaz ji Amerîkayê kiribûn ku biher awayekê be, Îran ji aliyê cîhana Rojava wate Amerîka û Ewropayê ve bihê perawêzxistin û heya ji bo nehiştina desthilata rejîma Komara Îslamî, ji êrîşa leşkerî jî mifahê bistînin.

Di vir de, belgeyên Wîkîlîksê lîstikek siyasî a Amerîkayê be yan berevajî weke ku di ragihandinan de hat xuyakirin, Wîkîlîks xweser be di wî karî de, negirîng e, belkî pirsa bingehîn di vir de ye ku Amerîkayê car din ji cîhanê û bi taybetî Yekîtiya Ewropayê re got ku we di wê lîstika siyaseta Abûrî de dorand.

Fakterên vê îdiaya Amerîkayê jî mirov dikare belgeyên Wîkîlîksê bi mînak bîne ku bi hemû cîhanê re da eyankirin ku tu welatek Rojhilata Navîn ji destê Komara Îslamî razî ninin û daxwazkarên tunekirina vê desthilatê ne, vêca çi bigîje bi serdestbûna Komara îslamî weke yekim hêza devera Rojhilata Navîn.

## Ayînnameya înzibatî; zanîngeh jî hêdî hêdî dibin nawendên nizamî

Di pêvajoya xurtbûna bertengiyên cur bi cur ji bo xwendekaran di seranserî Îranê de, Komîteya Înzibatî a Zanîngehan "Şerîetî" bi belavkirina kurtiyek ji ayînnameya înzibatî a pesendkiriya Şêvra Bilind a Înqilaba Çandî, selahiyet û îxtiyarên komîteya înzibatî gihandin guhê xwendekaran.

Di wê yasaya sepandî de, îxtiyarên komîteya înzibatî bi vî awayî hatine: 1. Helpisardin bo midehê yek heya çar nîvsalên xwandinê 2. Derkirina ji perwerdehiyê 3. Derkirin ji xewgehan û bêparkirin ji hemû îmkanatên tenahî û refahî.

Di rûpela yekim ya wê biroşûrê de hatiye: parastina hemû rêsayên ragihandî di dema hatinejor, dema beşdarî di "kilas, kargeh, derdor..." û herweha dema derketinê de erk û hetmî ye.

## Piştî ultîmatoma Kabulê, rejîmê bilez paşekêşî kir!

### Xelkê Efxanistanê li dijî Komara Îslamî rabû



Balyozê Efxanistanê li Tehranê ragihand ku ger Komara Îslamî îzna derbasbûna tankêrên şevatê nede, dê peywendiyên xwe bi tewahî ligel Îranê qut bikin. Balyozê Komara Îslamî jî di Kabulê de ragihand ku bi pêdeçûnek din dê bi zûtirîn dem pirsgirêka şevata Efxanistanê çareser bikin!

Herwekî wê ku piştî ultîmatoma 48 demjimêrî a Birîtanyayê li dor serbestberdana melevanên xwe, Komara Îslamî bi heman şîwe efûya îslamî kire nisîbê wan û bi zûtirîn dem melewanên destbiserkirî serbest berdan. Hêjayî gotinê ye ku xelkê Efxanistanê jî li hember vê kiryara Komara Îslamî de xwenîşandanên nerazîbûnê li dijî rejîma Îranê û rêberên wê qîrandin û wêneyê Xamineyî û Ehmedînijad jî dirandin û bi kevir û hêkan êrîş kirine ser balyozxaneya Îranê li Kabulê.

## Şandek hevpar a Partiya Pêşkevtınxwaz a Kurdên Sûriyê û Yekîtiya Demokratîk a Kurdî li Sûriyê seredana Deftera Siyasî a PDKÎ kirin



Şanda hevpar a partiya Pêşkevtınxwaz a Kurdên Sûriyê û Yekîtiya Demokratîk a Kurdî li Sûriyê, pêkhatî ji Elî Şemdîn, Nûnerê Partiya Pêşkevtinxwaz a Kurdên Sûriyê û Ebû Sabîr, Nûnerê Yekîtiya Demokratîk a Kurdî li Sûriyê roja Sêşemî, 18'ê Çileya Paşîn, seredana Deftera Siyasî a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê kirin. Şanda navbirî ji aliyê heyetek Partiyê bi serperestiya Mihemednezîf Qadirî, Endamê Deftera Siyasî hat pêşwazîkirin. Di rûniştina navbera herdu aliyan de rewşa siyasî a Kurdistan û dever û rewşa Kurd di herdu beşên Rojava û Rojhilatê Kurdistanê de ketin ber bas û nîqaşê. Di dawiya hevdîtinê de tekez li ser bihêzkirina peywendiyên navbera her sê aliyan de hat kirin.

## Berdewamiya xweşevitandinan li Elcezayirê



Li gor nûçegihaniya Firancayê, di çend rojên derbasbûyî de bi kêmî 7 kesan li Elcezayirê xwe şevitandine. Xweşevitandin herî dawî li roja Çarşemî, jinek Elcezayirî bû.
Mêrek ciwan di şeva Sêşemiyê di navenda bajarê Dilîzê agir berda cendekê xwe, rewşa wî xirab e û guman tê kirin canê xwe ji dest bide. Roja Şemiyê jî ciwanek din yê Elcezayirî li bajarek nizîk sînorê Tûnisê xwe şewitand û bi wê sedemê roja Yekşemî canê xwe ji dest da.
Di rojên derbasbûyî de jî li Misrê bikêmî du kesan hewildan bi nîşaneya nerazîtiyê xwe bişewitînin.
Xweşevitandina wan kesan bibîranîna xweşevitandina ciwanê Tûnisî ye ku şoreşa wê dawiyê a wî welatî jê şînbû.

Rojev

# Tûnis û serhildana ji bo azadiyê

**Selîm Zencîrî**

**Guhertinên li Tûnisê, peyam û hişdarek micid e ji bo hemû dîktatorên cîhanê!**
**Dîktatorê Tûnisê dengê xelkê bihîst, lê gelo desthilatdarên Îranê kengê dê ji xewn û xeyala împeratoriya cîhanê şiyar bin û xwe ji hêrsa pengorî a xelkê Îranê rizgar bikin? Yan jî dê çarenivîsek şibî Bin Elî dê ji xwe re bikin nisîb?**

Piştî wê ku welatê Tûnisê li sala 1956'ê de serxwebûna xwe ji Firansayê stand, bi hewl û bizava ''Hebîb Boreqîbê'', yekem Serkomarê Tûnisê pêşveçûnên baş bidest xistin û heya qasekê reng û bêhna civakek medenî û sivîl lê dixuya. Bi vê çendê jî karî weke welatek qerax Behra Medîteranê bala Ewropiyan bo aliyê xwe rakişîne û Tûnisê ji bextreşiya dîrokî rizgar bike. Tûnis wekî welatek Afrîqayî heya 23 salan berî niha rewşek aram û li halê geşekirinê de diborand, lê gava ku li sala 1987'an de Zeynel Abidîn Bin Elî, Serokê wê demê yê Îstixbarat (sîxurî) a wî welatî, bi kûdetayek aram desthilat girte dest xwe, rûpelek din ji dîroka wî welatî hat hildan. Bin Elî arasteya welat bi yekcarî guherand, subsît û siyasetên piştewanîker ên hikûmetî ji xelkê da sekinandin, destê sermiyandarên biyanî li bazara Tûnisê de vekirî hişt, herçend ku rûçikê Tûnisê jî bedev kir û hejmara zanîngehan û xwendekaran li astên bilind de jordeçû, lê vê pêşketina rûyekî encamên nerênî jî li pey xwe re anîn; anku dewlemend zengîntir û feqîr û belengaz jî, hejartir bûn.

Nirxa bêkariyê jordeçû, texa xwendevan bêkar man, ji hêla din ve jî azadiyên siyasî sînordar hatinkirin, hikûmet û serkomar, ne hilbijartiyê xelkê bûn, yasadanan li destê partiya hakim de bû, sîstema tek partîtî cihê piloralîzm û pirpartîtiyê girtibû, sansor û astengên ser riya ragihandinan li halê xurtbûnê de bûn û kerameta xelkê Tûnisê hatibû jêrpê xistin. Jiberku him îmkana beşdarîkirin li biryardanê, him jî derfeta rexne û gazindan ji desthilatê li ragihandinan de ji wan hatibû standin; bi wateyek din bibûn mirovên kerr, lal û kor.

Pawan û talankirina desthilat û samana giştî, xurtbûna fesada îdarî û ferq û ciyawaziyên mezin berhem anîbû, lewma her ku temenê desthilta Bin Elî dirêjtir dibû, nerazîtiyên xelkê jî pitir dibûn û xelik zêdetir dipengurîn.

Sal û zeman bi vî awayî û gor dilê dîktator diborîn, lê çerxa felekê ji nişkîve jê vegeriya û li pêvajoya belgeyên Wîkîlîksê de hin belge jî li ser fesada malî û îdarî a Serkomar û malbata wî hatin eşkerekirin. Lê wan belgeyan kêma dilê xelkê neşkand û hêz û enerjî a serhildanê li derûna wan de xurt nekir, lewma bûyerek din xelkê re bû hêcet, hêz û îrade û weke pirîşkê agir kete enbara barûta dilê şevitî ê xelkê Tûnisê û hêrsa pengurî a wan gihand kopika xwe. Bi awayek din ew agirê çend salî yê bin xweliyê, vegeşand.

Ew jî, bûyera xweşevitandina ciwanekî Tûnisî bû ku serbarê qedandina xwendina zanîngehî a xwe jî, lê bêkar mabû û bo bijîva jiyana xwe, bi erebaneya xwe karê firotina pancar û sewzî dikir, lê çavê polîsên Bın Elî dîsan jî beredayî nedida û erebaneya wî jê standin û çavkaniya dahat û bijîva jiyana wî ximitandin. Lewma ew ciwanê bêhêvî wekî dijkiryar û nerazîbûn, mirin bi ser jîna xwe de tercîh da û li ber deriyê awahiyek hikûmetî agir berda cesteyê xwe û bi gorîkirina canê xwe bû bi sembola serhildan û berxwedan xelkê. Bi vê çendê jî xelkê Tûnisê bi kerb û kîna pengorî, hêza hesinî û cesûriya bêmînak a xwe şoreşek birêxistin ku kunemişk ji Bin Elî kirine qeyserî û wusa ji Tûnisê reviya ku xwe ji sîbera xwe jî nekire xwedan û bi vî awayî xelkê cardin kerameta pêpeskirî a xwe bidest xistin.

Bi herhal serhildana xelkê Tûnisê bûyerek mezin e li dîroka hevçerx a cîhana ereb de û bûye bi hêvî û îlhamek ji bo xelkê welatên dîktator lêdayî, bi taybetî yên Rojhilata Navîn. Welatên weke Îran, Misir, Erebistan, Urdun, Elcezayîr, Sûriye û ...Hwd ku bi rejîmên dîktatorî û polîsî ve tên îdarkirin û awisê gelek bûyeran in ku herdem îmkana teqîna wan bûyeran heye. Lewre y divêt ji serhildana Tûnisê ders û şîretan werbigrin û rê ji bo azadiyên siyasî, piloralîzm, reform û demokrasiyê vala bikin, yan jî xwe ji bo bahoza serhildana xelkê ku text û bextê wan dê bi nîşange bigre, amade bikin.

Îrana pir netewî û pirçandî jî ku 32 salan berî niha ji aliyê komek melayên tarîperest ve destkevtên şoreşa 1979 a gelên Îranê ku şibî şoreşa xelkê Tûnisê bû û şahê Îranê neçar bi helatina ji Îranê kir, bi talan birin û desthilat li destê xwe de qorixkirinû çend qat xirabtir ji dîktatorê Tûnisê xirabî derheq gelên Îranê kirin û ji tu cinayet, zulm û zordarî û neheqiyekê li dijî wan xwe neparastin û serbarê bêparkirina xelkê ji azadiyên siyasî, çendîn diyardeyên neşayist weke bêkarî, fesada malî û îdarî, bengdarî, giranî, îdz, îşkence, girtin û kuştin kirine diyarî bo xelkê Îranê.

Bi taybetî li vê dawiyê de subsîda hikûmetî li ser alav û hewcehiyên rojane yên jiyana xelkê hilgirtin û giraniyek bêhempa li welat de cihgîr kirin. Li tepeserî, pêpeskirina mafê mirovî û şaromendî û kerameta mirovî, îdam, hovêtî, sansor û ferq û cudahiyan de li refa yekem de bûye.

Li asta navnetewî de jî ji ber serberedatî û hewildan bo bidestxistina çekên komkuj û guhnedan bi xwast û peymannameyên navnetewî, welat tûşî tehrîm û dorpêçên dijwar kiriye ku rasterast tesîr û bandor li ser jiyana rojane ya xelkê daniye, bi qasekê ku heysiyet û kerameta mirovî a wan pêpes û girovera nefeskêşanê jî her ku diçe ji wan tengtir dikin. Helbet bi piştqahîmkirin bi îdeolojî û meseb her terze cinayeteké tocîh dikin, lê şehamet, cesûrî û xebat û berxwedan xelkê Îranê li hember wan de weke çiyayekê bihêz e û tasika sebra wan jî lêwrêj dibe û hinde nemaye ku kula dilê xwe ya çend salî birêjin û kulê Îsikî li difina Mûsikî de derxin.

Bi giştî em dikarin bibêjin ku xwenîşandan û nerazîtiyên giştî weke yek ji riyên xebatê, dikare dîktatorên herî mezin û bihêz jî bêxe ser çokan, her çend ku li sala borî de erdheja xwenîşandanan jî ji ber zul û zoriya dîktatorên hakim bi ser welat de, Îran hejandin, lê ji ber bêbernameyî û nebûna rêberî û giştgîr nebûna xwenîşandanan, ew serhildan ji aliyê desthilatdaran ve hat tepeser û kuntirolkirin. Lê ew reşebayê ku koşka desthilata direwîn a Bin Elî hiloşand, ji Afrîqayê ve hêvî û mizgînî û peyama serketinê dide xelkê deverê û bi taybetî gelên Îranê jî. Lê gelo desthilatdarên Îranê dê bikarin wî dengî bibihîzin û ji xwe re bikin îbret? Bêguman na? Jiberku eva xalek hevbeş a hemû dîktatoran e ku direng hajê dibin, dereng jî têdigihîjin û dema ku têdigihîjin jî, tûşî şaşiyan dibin û asta bûyerê mezintir dikin. Çunku wusan difikirin ku dê heta dawiyê bikarin bibin xwediyê can, mal û namûsa xelkê û kursiya demkî a desthilatê bernadin û nizanin ku heta serî ji kesê re nemaye.

# Li Komara Îslamî de Înternêt li xizmeta miriyan de



Gorî nûçegihaniya "Mîras Ferhengî", bajarvaniya Tehranê dixwaze mezintirîn goristana Tehranê bi awayê zindî bixe ser malperên Înternêtê.

Birêveberê giştî yê peywendiyên saziya Beheşta Zehra, daye zanîn ku li egera wergirtina cewaza ewlehî de, dê hin kamêrayan di Beheşta Zehra de danên heya ku tazîdar ji riya înternêtê ve merasîma veşartina miriyên dilxwaze xwe bi awayê zindî mêze bikin.

Ewa di halekê de ye ku qebristan cihek taybet e bo xelwetkirina bi miriyan û sivikkirina barê derûnî ê xwe, lê danana wan kamêrayên zindî, bêguman aramiya hizrî ya xelkê têk bide û pirsgirêkên ewlehî ên zaf biafirîne. Lewma divê eve bihê berçavgirtin ku goristan di hemû cîhanê de xwedî hurmet û buhayek taybet in û onlainbûna wê, tenê destdirêjiya bo ser herêma taybetî ya malbatan e.

# Hicaba bizorî bi riftarên tund



Endamekî Şêvra Şoreşa Çandî a rejîmê tevî îşarekirin bi şikesta hikûmeta îslamî li hember berxwedana û xweragiriya jinên Îranê li dijî hicaba bizorî got: Bi riftarên tund û lêdanê, kes nikare hicaba neçarî bisepîne, jiber ku qebûlnekirina hicabê, dijkiriyarek siyasî ye.

Ekberî got: hin ji xwenîşandanên li dijî hicaba nebaş di civakê de, peywendî bi rêxistinên siyasî û hizrî ve heye.

Navbirî zêde kir ku di hin dibistanan de li cihê wê yekê ku şagirtan bigîjînin qenaetê, daku hicabê weke beşek ji saxlemiya civakî û kesî bipejirînin, bi givaşa tund û kêmkirina numreyan seba hicabê, bandorên nerênî hene.

## Îtiraf bi qaçaxa jin û keçên Îranî bo derve



Serokpolîsê ewlehiya giştî a"Naca" di got û bêjekê de bi nûçegihaniya "Mêhr" re di warê qaçaxa jin û keçên Îranî bo derveyî welat, got:Tu car kes nikare kesek din bi zorî bibe welatek din, belkî carna hin kes di şeklê geştiyarî û seferkirinê de diçin derveyî welat û li wir tûşî karên bêexlaqî dibin.

Navbirî got: Zortirîn hokarên ku dibin hegera fesada keç û jinan, gazîkirina wan e bo kar li navend û îdareyan de. Hin ji îdareyan reklamên damezrandina keçan li cihên taybet ûhinartina wan bo derve dikin û li wan karan de pitir ji wê ku giringî bi zanist, kar û pîşeya keçan bihê dayîn, rûçik û bejn û bala û cuwaniya wan girîngiyrk xasmanî peyda dike.

# Bandora zimanê duyem li ser qutabiyan



Sadiq wehdanî

Hînbûna zimanê mijarên dersî bi zimanek xêncî zimanê zikmakî di welatek weke Îranê de ku ji çendîn netewên cur bi cur û zimanên cur bi cur pêkhatiye, dibe sedema bandorên nerênî liser xwandekaran.

Di vê mijarê de em dixwazin ku pêtir bas ji bandorên derûnî "saykolojîkî" bikin ku renge hin ji xwandekar pêre berbirû bibin. Pirsgirêkên ku bi taybet di destpêka hînbûna zimanê duyem de dibe sedema destdirêjî û îhsasa bêhurmetî kirinê û di encam de pêkhatina dilkutokê di nava xwandekaran de.

Zimannas û lêkolerên mezin mîna: Mekinzî, Rîç, Dihose, Xanîkuf, Solak, Hartmen, Skarmen, .... zimanê Kurdî bi zimanek cuda dihesibînin ku eva jî eyankerê vê yekê ye ku qutabiyên Kurd di Îranê de bi zimanek din perwerde dibin.

Dema ku xwandekarek Kurd diçe dibistanê bi sedema hînbûna zimanên din, pêka peyva zimannasî tûşî "Xetayên zimanî" dibe, ji ber ku çarçoveya mejiyê wan pêka nîzama zimanê yekim yê wan hatiye çêkirin û hegera herî girîng di "Xetayên zimanî" de jî hînbûna dersan bi zimanek xêncî zimanê zikmakî ye.

Xetayên han di nava piraniya xwandekarên kurd de tê ditin. Dema ku ew xwandekar lihember neçarî, givaş û... ji aliyê sîstima perwerde û dibistanan berbirû dibin, tûşî dilkutok "strês" ê dibe ku dikare li ser domandina hînbûn û jiyana xwandekar bandorek nerênî çêbike.

Herweha di nava civakê yan di civînan de gotina peyvên şaş yên "Xetayên zimanî" di nav civînan de dibe sedema dilkutok û kesê han hewil dide ku kêmtir di nav xelkê bigere û biaxive. Di nêrînek derûnnasî "saykolojî" de, mîkanîzma berevanî bo pêşîgirtin ji dilkutok "strês" ê tê naskirin, ku pêşî ji geşekirin û pêşveçûna xwandekar di warên civakî û zanistî de digre.

Pêkhateyên hizrî ên xwandekaran çarçoveyek li gor zimanê yekim wate zimanê zikmakî yê xwe ye û mirov jî hertim bi zimanê xwe yê dayîkî difikirin. Ger xwandekar bi zimanê xwe bixwîne, êdî neçar nine çarçoveya hizrîna xwe biguhere. Her wusan dibe hegera têgihîştin bi awayek dirust ji mijarên dersî bo qutabiyan û ew kêmtir tûşî astengiyan di warê derûnnasî "saykolojîkî" dibin.



# Binpêkirina mafên jinan



Sefye Xalidî

Di despêka peydabûna mirovatiyê li ser rûkê cîhanê, xebata jinan ji bo jiyan û mayînê ger ji ya mêra pêtir nebe, bê guman kêmtir jî nine. Ji xwe mirovahî û jiyan li jinan despêdike. Wate ger ku jin nebe, jiyan ji nabe, ger em kûrahiya dîrokî bikolin, şopa rila pozîtîv ya jinan di hemû mijarên jiyanê de tê xuyakirin; weke derbasbûna mirovan ji berberiyetê ber bi bajêrvaniyê, weke tê zanîn karê kevîkirina ajelan, çandin û veçandin ji bo debara jiyanê ji aliye jinan ve destpêkiriye, herweha bi hatina Pêxemberan, ol û baweriyên wan, jinan di wan mijaran de jî roleke mezin lîstine, mîna hezreta Meryem ku şert û mercên Xwedê pejirandin û ew barê giran da ser milên xwe û Îsa pêxember anî dinyayê..., yan jî Xedîce jina Mihemed Pêxember ku yek ji wan kesan bû ku di destpêkê de îman anî û hemû mal û samana xwe di riya Îslamê de pêşkêş kir.

Raste ku bi çend mînakên biçûk mirov nikare ked û emega jinan ji bo mirovahiyê û jiyanê bîne ziman, lê mixabin ew hemû xebat, emeg û kedê, piştî şaristaniyetê û hatina olan, rê li ber binpêkirina mafên jinan negirtiye. Ligel pêşveçûna medeniyetê li Rojhilata Navîn ku dergoşa şaristaniyetê tê naskirin, binpêkirina mafên jinan her pêtir û bi hatina dewletên olî û mesebî, ne tenê çerxa zulmê nehatiye rawestandin, belkî her wa bilez û beztir bûye. Ger em bixwazin ji bo mijara xwe mînakê bidin, dewleta Îranê dibe mînaka herî sereke ku têde mafên jinan bi gelemperî tên binpêkirin, Sîstemek bi tewayî mesebî û radîkal ku bi navê xwedê û Pexemberan zulm û zoriyê ji xelkê dike.

Di vê rewşê de xelkê ku pêtir ji maf û daxwazên xwe ên sereke bêpar mayî, gelê Kurd û bi taybetî jî jinên kurd in ku hertim ji navend, bajar, zanist û xweseriyê hatine dûrxistin û tevî vê yekê jî çavnebariya dewletê li hember gelê Kurd û derxistina kosp û astengan li hemû aliyan, rewş aloztir kiriye, jiber ku gelê Kurd di Kurdistana Îranê de her dema ku hebûna wî di metirsiyê de bûye, bi jin û mêran berxwe dane û her gav hereketek netewî djî tunekirina zulm û zoriyê li Îranê de birê ketiye, gelê kurd gaziya netewên Îranê bo xebat û tekoşînê kiriye û ji wan pêtir berxwe daye û zêdetir jî xwîn daye û jinên Kurd xwedî rolek berçav in di wê meydanê de. Wan xalên han di wê rewşê de bixwazin nexwazin tesîr li mafê jinên Kurd kiriye, ger li Îranê jin bindest in, jinên Kurd 3 car blindest in; Carek jiber jinbûna xwe, carek jiber netewa xwe, û carek jî jiber mesebê xwe ku pirranî Sunnî ne. Di civakek bi wî awayî de, mêr weke stûna jiyanê tê naskirin û jin bi vî ve girêdayî ye.





Mafê serbestiy peyvîn û lixwekirina kincan bi dilê xwe, bi fermî nehatiye naskirin. hewildana dewletê ji bo pêşgiriya azadiya kincên jinan, dasepandin û danîna hicaba bi zorî hewildanek ji bo şikandina îrada jinan di civakê de ye ku di wê rêyê de mêrên civakê jî bi zanebûn yan ji nezanî xizmeta siyasetên hikûmetê dikin yan jî baştir ev e ku bibêjin bi nezanî ketine hêla berjewendiyên dewletê de. Kultorek ku di civaka Îranê û bi taybetî di civaka Kurdî de heye, zewtkirina mafê xwendinê, bizorî zewicandin, nebûna guhek ji bo bihîstina dengê wan, nebûna mafê helbijartinê û serxwebûnê, gelek caran bûye sedema xwekuştin û şewitandina jinan.

Li gor hin serhejmariyan, jin di temenê 17 heya 32 saliyê pirrtirîn givaş, zebr û zehmetiyan dibînin, bi wateyek din sedî 56 ji jinan di wê reweşê de dijîn. Sedî 60 jinên ku li aliyê mêrên xwe ve tên îşkencekirin, xwendinek seretayi hene û li sedî 30 ji wan nexwendewar in. Îşkence ne tenê fîzîkî ye ku radeya wê ji hemûyan pitir e, belkî îşkenca abûrî û piskolojîkî(rohî), hebûna madeyên hişber ên malwêranker ku dewlet bi xwe rê li ber vedike, ji bo îmha kirina xwast û îrada milet in.

Sedemên han û gelek sedemên din, bûne egera vê yekê ku jin xwe tenê bêdesthilat dibînin. Mixabin pirsgirêka jin mijarek taze nine û em dikarin bi kurtasî bêjin, ne di dema hatina olan û ne piştî avabûna dewletên bi yasa û ne jî di civakên sivîl û medenî de ew tilorans nehatiye danîn û nekariye cihê xwe bigre û dewlet û ciwaka me ya paremayî ku li bal xwe dibêjin em pêşvero ne; cihê ku bersivek bidin pirsê, hewl didin ku pirsê ji holê rakin.

Lê heya ku mirov nexwazin wan pirsgirêkan liser riyê rakin û hev û du weke însan bibînin û ji bo mafê hev nirxê bidin, ew nakokiya jiyanê dê her berdewam be û yasaya dewletan ên saxte û bi qirêj dê liser me zal bin û azadî, wekhevî, bextewerî, xweşî û rindî dê stêrkek be li esmanan. bi hêviya rojek ku jin û mêr bi awayek wekhev di jiyanê de bixebitin da ku civakek xweş, geş û pêşketî ava be û her kes liser axa welatê xwe serbest, azad û wekhev bijîn.

## Hunermend/ Narîn Feqê:

# Bila herkes bingeha xwe nas bike û bizane armanca hunera wî çiye

Hevpeyvîn: Daryûş



**Hozan Narîn Feqê kerema xwe derheq jiyan û serpêhatiyên xwe hin hajayên zêdetir bide xwendevanên Agirî?**

Ez xelkê Başûrê Rojava, bajarê Dêrika Hemko nizîk bajarê Qamîşlo ji dayîk bûme. Ez ji malbatekî hunerî me. Bavê min hûnermend e û bi navê hunermend Cûdî tê naskirin. Bapîrê min Hecî Ahmedê Feqê Hesen dengê wî jî gelek xweş bû û stran digotin. Hertim filkulora strana Kurdî ya resen di mala me de hatiye gotin. Di mala me de û di gelek civakên hunerî de gava ez zarok bûm gelek hunermendên resen stran gotine digel bavê min û bapîrê min, weke nimûne, Mihmed Arif Cizirî, Mihmed Şêxo, Seîd Yûsif û gelek stranbejên din.

Di sala 1990'ê Zayînî de koçber bûm di gel malbata xwe û niha jî li bajarê Stockholmê li welatê Swêdê dijîm. Stran gotin û yaku ez bibime hozan, xeyalek mezin bû di dilê min û ji zaroktiya min de. Bavê min piştgirî daye min û digute min dengê te gelek xweş e û ez hez dikim ku tu xizmeta strana Kurdî bikî. Ew daxwaz li nik min gelek xurt û bihêz bû. Min muzîk xwendiye û xwe fêrî alava piyano kir bi rengekî bingehîn da ku ez tonên dengê xwe nasbikim. Min 2 sal jî di dibastana kultûrama kursên deng standin û herweha xwe fêrî mûzîka biyanî kir di warê muzîka kilasîk, pop û jazz de.

Lê bala herî mezin ew bû ku muzîka Kurdî gelek bala min kişand û di filkulora me ya Kurdî de nasnama me û dîroka miletê me yê Kurd tê xuya kirin. Ji ber vê yekê jî bala herî mezin ew bû ku muzîk û filkulora Kurdî cihekî taybetî hemî gavê li cem min hebûye, ji ber ku di mala me de hertim strana Kurdî hatiye gotin.

Daxwazekî min jî hebû û ew jî ku ez xwandina akademîk xelas bikim. Di sala 2001'an de min dest bi xwandina yasaya dewlî di warê yasaya Ewropa kir li dû Ûniversitet ya Södertörnê û herwiha li Stockholms Ûniversitet.

Di sala 2003'an de bi rengekî professional min dest bi huner û stran gotine kir û hatime nav dunyaya hunera Kurdî. Min li peşbirkekî mezin di nav ciwanên Kurd li Swedê de, rêza yekemîn wergirt û li wêderê jî mamosta Dilşad Saîd û Şivan Perwer xudan biryar bûn ku ez di rêza yekemîn hatim. Di sala 2004'an de min singelek belav kir bi navê Nalînek ku li ser strana Nalînek tê guhê min, ev nav hatiye hilbijartin. Di vê singelê de 4 stran amade bûn. Strana Nalînek tê guhê min li ser rewşa Kurdistanê ye û ji peyvê Seyda yê nemir Cigerxwîn e û ji awazê hunermendê nemir Mihemmed Şêxo ye.

Di sala 2008' an de min xwendina xwe ya hiqûqê (magister in Eûropean law) xelas kir û di meha newrozê de 6/3 2009'an de min albûma Hêvî belav kir. Albûma Hêvî navê xwe girtiye ji strana Hêvî ku li ser rewşa jina Kurd e û astengiyên ku jina Kurd hemî rojê dibîne. Armanca strana Hêvî ew e ku hêvî bide jina Kurd, jiyana xwe bi azadî û bê asteng berdawam bike û bijî.

Niha jî hunera min berdawam e, bi albûmekî nû, û herweha weke yasanas li Migration Board a Swedî (Daira Hicray Swêd) wek yasanas di gel mirovên penaber kar dikim.

**Gelo hûn heya çi qasekê weke jinek hunermend li jiyana xwe ya hunerî razî ne?**

Ez ji jiyana xwe ya hunerî gelek razî me. Huner karekî ne hêsan e, lê gava mirov ji hunera xwe û ji welatê xwe hez bike mirov hez dike ku xizmetekî ciwan û resen pêşkêş bike ji guhdarên xwe re.

**Narîn Feqê çi pilan, piroje bi giştî armanca we ya paşerojê çiye?**

Armanca min ya pêşerojê hatiye çêkirin di warê xwendina min ya hiqûqî de û karê min yê rojane li welatê Swêdê. Min xwendina xwe ya hiqûqê xelas kiriye û hunera min jî îro berdawam e. Daxwaza min ya herî mezin ew e ku em bikarin weke hunermend, li ser hunera xwe bijîn. Lê ew daxwaz di roja îro de gelek zehmet e. Lê ger xebat û hêzên mirov weke hunermend xurt bin mirov xizmetê dike ji bo guhdarê xwe re, çiqas ku asteng jî hene mirov berdawam e.

**Hozan Narîn Feqê, hûn bo gotina stranên xwe herî zêde ji çi sitaylekê mifahê werdigrin?**

Bavê min ez fêrî strana Kurdî ya resen kirime, û ger mirov filkulorê xwe nas neke, mirov bingeha xwe jî nizane. Ez staylê xwe di nav filkulora Kurdî de dibînim, û herweha têkel di nav muzîka Rojhalatî û Rojavayî.

**Gelo hûn heya çiqasekê girêdayî bi jiyana Hûnerî ne?**

Weke jinekî mafnas jiyana min du beş e. Beşek rojane bi kar û xebata însanî kar dikim. Li mal jî gelek bi hunera xwe ve jî mijûl im û di dema vala de di konsertan beşdar dibim û bi stranên nû û albûmekî nû roja îro kar dikim. Hunera min jî berdawam e.

**Hûn ji wan kes û hunermendên ku bi tevlîhev kirina stran û mûzîka Kurdî dixwazin nav û dengên xwe bilind bikin, çi dibêjin?**

Ez ji bo wan dibêjim ku zehmetiyên hunera Kurdî bêhtir hene. Huner karekî hêsan nine, karekî gelek zehmet e.

Bila herkes bingeha xwe nas bike û bizane armanca hunera wan çiyê. Ger çi armancek ji bo hunera hunermend tunye û merema wî hunermendî/ê ew e ku tenê nav û deng bistîne, ez bawerim ku ew huner di paşerojê de dimire, winda dibe, û cihê xwe nagire di nav xelkê de.

**Pêkanîna jiyana hevbeş, û nemaze jiyana xerîbî tu bandorek li ser pêvajoya xebata we ya hunerî hebûye?**

Taybet jiyana xerîbî zehmetî





dide min weke hunermend! Lê di Kurdistanekî azad de hêzên hunerî yê mirov xurtir dibîne û bala mirov dikişîne û hêzek dide min ku ez hertim berdawam bim li ser xebata xwe ya hunerî ji bo guhdarê xwe re. Lê bandora jiyana xerîbî gelek zahmet e û jiyanekî pir strêss û zorî dibînim. Huner û karê min yê yasayî gelek zehmet e. Ez herdem dibêjim jiyana Ewropa di warê teknîkî û vîdeo klîpan re gava mirov dixwaze tiştên pirofessional pêşkêş bike gelek başe. Lê ji bo hestên muzîka Kurdî ya resen, welatê mirov û warê mirov di hemî gavan de xweştir e.

**Narîn Feqê hûn ji zarokên belengaze Kurdan re çi dibêjin?**

Ez ji bo zarokên Kurdan dibêjim bila nasnama xwe û Kurdîtiya xwe ji bîr nekin, û bila bixuînin ger îmkan heye.

Belengazî gelek zehmet e. Bê xwandin mirov jiyanekî berfireh nabîne û karekî baş nabîne. Zarokên Kurdên belangaz li cîhanê jî heye û herweha li Kurdistanê jî. Ger îmkanên mirov ye xwendinê heye bila mirov li ser rêya zanibûn û xwendinê berdwam be.

**Çi tiştek Hozan Narînê xembar dike û ew bi tu tiştekê jî şad dibe?**

mirovên du rûyê wî hebin min xembar dike û herwiha civaka ku miletê me yê Kurd îro lê dijî hêla cihê xwe baş negirtiye. Ev yek gelek min xembar dike.

Wekhevi ya jin, zilam, zarok gelek girîng e û gerek her malbateke Kurd li cîhanê û li Kurdistanê bi hurmet û bi hezkirin li heval û civaka xwe binêre.

Tiştên min şad dike ew e ku Kurdistaneki azad ya militê me yê Kurd û herweha azadî ya jin û zarokên me yê Kurd bi taybet.

**Hunermend erkekî pîroz û giran li ser milê wan e, û xûdî li çand û hûnera Kurdî derdikewe û zimanê Kurdî diparêzin. Gelo li hember de gel jî li we xûdî derdikewe, li her warekî de?**

Mirov û insanên rewşenbîr li me xudî derdikevin. Hunermend hestên xwe û zimanê xwe di awaz û stranan de daxwiya dikin. Insanên ji huner hez bike û ji zimanê Kurdî hez bike neçar dibe aghdar be. Zimanê Kurdî nasnama kultûr û dîroka me ye, û bi riya hunera xwe ku karekî kultûrî ye barekî giran li ser milê me hunermendan heye. Weke hunermend ez li peyv û awazê stranan re gelek agahdar im, û peyva Kurdî ya heri ciwan hez dikim ji bo guhdarê xwe û miletê xwe peşkêş bikim. Huner li cem min karekî resen e û karekî kultûriye û ji ber vê yekê jî gerek mirov li zimanê xwe aghdar be, jiberku dayik, zarok û civakekîmezin li muzîka mirov gudare û ez hezdikim hertim tiştên ciwan di warê ziman, awaz û vîîdeo klîpan de pêşkêş bikim. Di albûma min ya nû û paşerojê de pirojeyên gelek balkêş û ciwan heya der heqe zimanê me yê Kurdî de.

**Narîn herî zêde kîjan hunermendî hez dike?**

Ez gelek ji hûnermendê Kurdî yê resen hez dikim û heta roja îro wan gudar dikim. Dengên ku hertim guhdar dikim hunermendên nemir weke: Miryem xan e, Mihemed Şêxo, Tehsîn Taha û Mihmed Arif Cizrawî û herweha Hesen Cizirî.

**Hûn hunera Kurdî bi giştî çavan dinirxînin?**

Her hunermendek staylê wî yê taybet heye û gerek nasnama xwe û armanca xwe ya hunerî bizane. Di vê dema taliyê de hunera Kurdî têkel bûye di nav hunera Erebi û Tûrkî de. Hêvîdar im ku ew hunermendê ku di warê hunerî û huner de kar dike cihê xwe bizane, kultûr, zimanê xwe û dîroka xwe ya Kurdî jî bîr neke.

Gerek em ji bîr nekin, hunera me ya Kurdî li Turkiya û li welatên Ereb hatiya wêran kirin. Barê me û karê me ew e ku em hunera xwe ya Kurdî ya resen biparezên.

**Narîn wan peyvên xwarê bi çi avayekê şirove dike?**

- Kuridstan (Welatê min)

- Welat (Warê min. Cih û peşeroja min)

- Jiyan ( Di jiyan de xweşî û nexweşî heye)

- Evîn ( Bê evîn jiyan nabe)

- Şehîd (Bi xwîna Şehîdan me îro parceyek ji Kurdistanekî azad heya)

- Pêşmerge ( Hêza şoreşa Kurdistanê ye. Bê peşmerge, Kurdistan nabe)

- Huner ( Jiyan û dûnyayekî taybet e)

-Jin (Jiyan e)

**Hûn xebata Rojnameya Agirî çavan dinirxînin û ji xwandevanên Agirî re çi dibêjin.**

Ez ji bo xebata we û rojnama Agirî re di sala 2011'an û ji bo pêşarojê de serkeftinê dixwazim. Ji bo guhdar û xwendevanê Rojnama Agirî re silavên xwe û serkeftin ji bo hemiyan dixwazim.

# Em koçerin

**Husên Ebas**

Koçerin em..... koçerin di rêkê de.....
rêke tarî, dûr û bê dawî .....!
Koçerin em..... koçerin li hêviya .....
hatina xweşiya bê hêvî.....!
Koçerin em.... koçerin û konê meyê
perptî....
li ser pelên darên payizî.....
ku ba lê didê û kes nizanê....
bê bi ku ve diçê û.....
Li ku di çelmisê û di deynê......!
Koçerin em.... koçerin û em nizanin bê.....
kengî careke dî....
bayê virtone çadirên me hildigirê,
û dibê çi welatî û kîjan warî........!
koçerin em.... koçerin û bîr û
behweriyên me jî
nizanin bê serê wan li ser çi balgihiye ,
û feleka bê bext wê wan li ku bi cî
kê......!
koçerin em.... koçerin û mistek ji axa
tingê me,
di tûrê li pişte me de veşartî,
wek pirinkekî kû rojê sed carî ,
divemirê û geş dibê .....!
koçerin em .... koçerin û hêviyên me jî ,
di nava xwede bi şahiyên xelkê,
bi şermî, dîlanê dikin û nizanin ,
bê kengî dora wan tê.....!
koçerin em.... koçerin û konê xwe yê
reş,
li ser perên ewrên giran û tarî
vegirtiye,
û nizanin ewê li ku û kengî barê....!
Koçerin em....koçerin û li warê beyani,
dih ji me ne bi yekîye,
kû yekî xwe nedida bi sedî....!
koçerin em ..... koçerin û kerwanê me,
yê bê sermiyan di çê,
di rêke winda de û bê dawî û,
kes riya rastî şanî nadê......!
koçerin em ..... koçerin û nêvî ji
terşutalanê xwe,
me di rêde windakiriye û nizanin,
bê dawiya mayî , kengî û li ku wenda
dibê

# Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye
Ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

www.kurdistanmedia.com/kurdi
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE
E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com


## % 98 a xelkê başûrê Sûdanê di referandomê de beşdar bûn




Li gor zaniyariyan %98 a xelkê Sûdanê di refrandoma başûrê Sûdanê de beşdarî kirin.

Hejmartina dengên referandoma başûra Sûdanê berdewam e û biryare ku piştî derbasbûna mideheke, encamên wê yên fermî bihên ragihandin. Li gor encamên berayî pirraniya adengderan deng bi xweseriyê başûra Sûdanê dane.

Qasek kêm ji dengdaran jî deng dan yekparçeyiya Sûdanê, herwiha hejmarek diyarîkirî jî, dengên sipî avêtine.

Hêjayî gotinê ye ku piştî pêtir ji 20 salan bi ser şerê navbera hikûmeta Sûdan û cudaxwazên başûrê Sûdanê de ku pêtir ji 2 Milyon kes têde hatin kuştin. Li sala 2005' an de her du alî rêketinnameyek wajo kirin û li gor wê rêketinê referandomek li başûrê Sûdanê pêk bê heya xelkê başûrê Sûdanê biryar li ser çarenivîsa xwe bidin. Referandom li 4'ê Çileya Paşîn a 2010'an de li başûra Sûdanê destpêkir û biryar e ku li çend mehên din encamên dawîn yên referandomê bên ragihandin.

## Mirina moitad û kartonxewan ji ber sirr û seqemê



Kartonxew û bêmal û hal ku pirranî bengdarê madeyên bêhişkerin, li ser şeqaman, nav parkan û li kelaweyan de dijîn.

Berpisê navenda lêkolînî a Pijîşkê Yasayî ragihand: Di 9 mehên darbasbûyî de 2633 kes bi sedema bikaranîna madeyên hişber canê xwe ji dest dane ku ji wan 2504 kes mêr û 129 kes jî jin bûne.

Navbirî ragihand, her sal di demsala Zivistanê û ji ber sirr û seqemê gelek ji wan kartonxewan canê xwe ji dest didin ku li sala borî de 22 ji wan sirêbirî bûn.

## Hevjîna Bin Elî bi 1/5 ton zêran helat



Li gor rojnameya Firansayî a Lomond, hevjîna Bin Elî, Serokkomarê nûherifî ê Tûnisê, demek berî revîna ji Tûnisê çûye banka navendî û 1500 kîlo Zêr ku hevberî 45 Milyon Euro an e, bi xwe re biriye. Tê gotin ku niha ew ligel Bin Elî li bajarê Cede a Erebistanê de li perava behra Sor de dijîn. Rojnameya han gotiye di destpêkê de serokê banka navnedî nexwastiye ewqas zêran bide Leyla Bin Elî, lê piştî peywendî girtina telefonî bi mêrê wê re, ew zêr radestî wê kirine.

Niha hesabên bankî ên desthilatdarên Tûnisê di Swîsê de jî di bin çavdêriyê de ne. Wezareta derve ya Swîsê ragihandiye ku dikare wan hisaban bicemidîne.

Payîza derbasbûyî yasayek li Swîsê hat pesendkirin ku li gor wê, dewleta Swîsê dikare mal û heyîna dîktatoran bi derdserek kêmtir bo wê xelkê ku ketine ber zulmê, vegerîne.

Leyla Bin Elî û malbata wê berî revînê jî bi tamahiya li pere û desthilatê de bi nav û deng bûn. Piştî hiloşîna hikûmeta Bin Elî di 14' ê Çileya Paşîn de, xelkê hêrs û bikerb yê Tûnisê daketine ser wîllayên wê malbatê û ew talan kirin.

## Jinek Tûnisî dê 12 zarokan bihevre bîne dinê



Li gor nûçeyek rojnameya "Şerquloset"ê, jinek Tûnisî bi van zûyane dê 12 zarokan bihevre bîne dinê. Berê jî jinekê di Amrîkayê de 8 zarok bihevre anîbû dunyê ku pir balkeş bû. Mêr û malbata wê jinê ragihandine ku di vî warî de gelek keyfxweş in. Ew jin û mêrê Tûnisî gotin: Vê bûyerê em gelek keyfxweş kirin, em çavnihêrê jidayîkbûnê bilez a wan zarokan dikin. Ew pêşbînî dikin ku 6 ji wan zarokan keç û 6 ên din jî dê kur bin. Ew jine dixwaze zarokên xwe bi awayekê siroştî bîne dinê.

## Gemiya Nûh pêxember alozî xiste navbera Kurd û Şîeyan

Di duyem roja kongireya navnetewî a got û bêjên ayînan ku li bajarê Necefê de birêve çû, li ser gemiya Nûh arîşe dikeve navbera kurd û Şîeyan. Merîwan Neqşbendî, birêveberê ragihandina Wezareta Ewqaf û Kar û Barên ayînî yê hikûmeta Herêma Kurdistanê li vê derheqê de ragihand: Çend zanayên ayîna Şîe di lêkolînên xwe de amaje bi vê yekê kirine ku gemiya Nûh di navbera bajarê Kûfe û Necefê de cihgîr bûye. Wê yekê jî şanda Kurdî bi hemû ayînên Herêmê ve nîgeran kir. Herweha got ku mamosta Ebdulla, Serokê Yekîtiya Zanayan di vekolîna xwe de ew yek rast kir û tekez li ser vê hindê kir ku gemiya Nûh li bakûrê Kurdistanê sekiniye. Piştî nîqaşek zaf li navbera Kurd û Şîeyan, ew amade nebûn ku cihê gemiyê nîşan bidin. Lê şanda kurd amadegiya xwe bo selmandina vê rastiyê bi zanayên şîe nîşan da. **radionawa**

